Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 30
31'ê Dec 2005
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Sersala nû pîroz be

Seba hatina sala nû ya 2006'an, em pîrozbahiyên xwe yên germ û gur pêşkêşî hemû gelê Kurd û gişt gelê Îranê û cîhanê dikin.

Bila sala nû bibe sala serkeftina armancên pîroz û mezin yên neteweya Kurd, azadî, demokrasî, mafên neteweyî û wd ... . **Desteya Nivîskar ya Agirî**

# PÊŞMERGE XEBATKAR, AZADÎXWAZ Û BEREVANKARÊ NETEWEYA KURD E

## 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê bi coşeke mezin hate pîroz kirin



Bi hinceta 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê rê û resmeke hêja û berfireh li roja 26'ê Sermaweza 1384(17.12.2005)'an, ji aliyê Deftera Siyasî ya PDK Îranê hate lidarxistin.

Birêz **Hesen Şerefî**, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê axavtinek girîng û balkêş pêşkêş kir.

Hunermandên navdar **Reşîd Feyzînejad** û **Qadir Qurbanî** bi stran û sirûdên xwe rê û resm coşandin

**Di rûpelên 2 – 4'an de bixwînin**

## 51 kes li Seqizê ji bo Dadgehê hatin bang kirin

51 kes ji welatiyên bajarê Seqizê ku di dema serhildana havîna îsal de, heyamekê hatibûn binçav kirin û piştre bi danîna sened û wesîqeyan bi awayekî demkî serbest hatibû berdan, ji bo ji nû ve mehkemekirinê, ji bo Dadgeha "Înqilab" (Şoreş)a Îslamî ya bajarê Seqizê hatin bangkirin.

Ew kesên ku hatine bangkirin, neçar hatine kirin ku di komên çend kesî de û li bervara diyarîkirî de (mehên Sermawez û Berfanbarê) ji bo mehkemekirinê li dadgehê amade bibin.

Hêjayî gotinê ye ku kesên bangkirî, parêzer ninin û ew sened û wesîqeyên ku ji bo serbestberbûna xwe danîne, bi kirê girtine.

Ji ber nebûna cih, me ji anîna navên kesên bagkirî ji bo dadgeha bajarê Seqizê xwe parast.

## Amerîka 9 Şîrketên Çînî, Hindî û Otrîşî seba firotina alavên mifah wergirtin di çêkirina çekên tevkuj bi Îranê, dorpêç dike

Li gorî nûçeyê Radyoya "Farda" ya Farsî ziman, Wezareta Karê Derve ya Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê îlan kiriye ku 9 şîrket ji welatên Çînê, Hindistanê û Otrîşê seba firotina alav û teknolojiya pêşverû ji bo mifah wergirtin di pîşeya leşkerî û çekên kîmyayî ya Komara Îslamî a Îranê, baykot dike. Ev baykotkirine parek ji siyaseta dewleta Amerîkayê ji bo pêşîgirtin ji hatina teknolojiya pêşkevtî ya leşkerî û sanetî bi Îranê ji bo alîkarîkirin bi bernameya etomî ya Komara Îslamî ya Îranê ye.



Amerîka û Ewropa cehdê dikin ku bala Çîn û Rûsyayê ji bo dorpêçkirinên Îranê di Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de amade bikin.

Birêz Xusro Ebdulayî:

## " Yekemîn kesê ku pirsa Kurdan bi derve da naskirinê Dr. Qasimlo bû"

Berpirsiyarê Pêwendiyên Derve yê PDK Îranê Birêz Xusro Ebdulayî:

**"Ez vê bibêjim, di dahatûyeke pir nêzîk de hetmen wê Kurdên Îranê televîzyonekê ava bikin"**




## Demokrasî, biha û piratîka wê (Beşa 19)

Di vê beşê de beşdariya siyasî ya welatiyan di prosêsa demokrasiyê hatiye şirove kirin... **(R. 5)**



## Komara Îslamî û rewşa ciwanan!

Ciwan hêvî û pêşeroja jiyana xwe di bin desthilata Komara Îslamî de reş û tarî dibînin... **(R. 7)**



## Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan peymanek navneteweyî ye ku ji bo berevanî û piştevanî kirin ji mafê zarokan hatiye berhev kirin. Ev peymane piştî 10 salan gotûbêj di navbera welatên endamê... **(R. 8)** (Beşa 4)



## RAMAN

Tiştê ku takekes ji lewir û ajalên hoveber vediqetîne û wî/wê radigihîne radeya mirovbûn û payedariyê, hizr û ramana mirov e... **(R. 9)**



# Daxuyaniya Deftera siyasî ya PDK Îranê derheq gotinên vê dawiyê yên Mehmûd Ehmedînejad derbarê jinavbirin û şandina Îsraîlê

Mehmûd Ehmedînejad di konferansa **cîhana bê sehyonîzm** de ku roja çarê meha Xezelwera îsal (26'ê Oktobrê) li Tehranê hate lidarxistin, daxwazkarê ji nav çûna Îsraîlê bû, piştre di navbera civîna awarte ya rêberên Rêxistina Konferansa Îslamî li bajarê Mekê di roja 17'ê Sermawez(8'ê Desambr)ê tevî haşakirin ji kuştina milyon kes ji Cihûyan di şerê duyemîn yê cîhanê de ku piştre bi **Holokonst** hata linavkirin, daxwaza pêkanîna dewleta Îsraîlê di nav welatên Ewropayê de kir û çend rojan berî niha jî ev gotinên xwe di civîna xelkê bajarê Zahêdanê de dubare kirin. Wisan tê xuya kirin ku Ehmedînejad ne tenê şiyan û karîna çareserkirina pirsgirêkên hundir û çêtirkirina rewşa jiyana xelkê tu nine, belkî di bîra afirandina aloziyê li herêmê û birina Îranê ber bi pêşerojeke nexuya ye.

Ya çêtir eva ye ku Mehmûd Ehmedînejad û hevbîrên wî di Îranê de li cihê gef û êrîş kirin ji Îsraîlê û



çêkirina kosp û astengan li ser rêya aştiya navbera Filistîn û Îsraîlê, di fikra çareserkirina wan qeyran û kirîzên kûr bibin ku pêşiya bi milyon ciwanan di Îranê de girtiye, wek îtiyad, bêkarî, bêhêvîtî, birçîbûn û hwd.... jiyan ji wan tehl kiriye.

Lê ji ber vê çendê ku Emedînejad û rayedarên din yên rejîmê baş ji vê çendê fêmkirine ku karîna çareserkirina pirsgirêkên zaf yên xelkê Îranê ninin, dixwazin bi afirandina aloziyê li herêmê û dirûşmên bênaverok û kakil, ra û bala xelkê birçî, bêşol û belengaz yê Îranê ji bo derveyî tixûbên Îranê û ji wan jinav birina Îsraîlê bikişînin, ew jî bê liberçavgirtina vê rastiyê ku bi dirêjiya du dehsalan, xelkê Îranê ev dirûşm zaf caran û her carê bi awayekê ji serokên Komara Îslamî bihîstine û zêdetir ji vê naxwazin guhdarê wan bin. Niha êdî daxwaz û xwestekên serokên Komara Îslamî û yek ji wan Ehmedînejad ji bo xelkê ron û aşkira bûye û çi din bi wan nahêne xapadin.

Em gotinên ne berpirsiyarane û alozî afirandinê yên Ehmadînejad derheq Îsraîlê mehkûm û şermezar dikin û bi maytêkirin di kar û barê hundir yê welatan û ne liberçavgirtina qanûnên navneteweyî dizanin û em li ser vê baweriyê ne ku gotinên wiha rewşa herêmê aloztir dikin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**16.12.2005 – 25.09.1384**

# 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê bi coşeke mezin hate pîroz kirin

Bi hinceta şêstemîn salvegera girtina şarevaniya Mehabadê û bilindkirina ala Kurdistanê ku bi navê Roja Pêşmergeyê Kurdistanê hatiye navkirin, rê û resmeke hêja û berfireh li roja 26'ê Sermaweza 1384(17.12.2005)'an, ji aliyê Deftera Siyasî ya PDK Îranê birêveçû.

Di destpêka rê û resmê de **Beşa film**, fîlmek derheq qewimînên wê demê û qonaxên din yên xebata Pêşmerge belav kir û piştre Cîgirê Sekreterê Giştî û berpirsê Komîsiyona "Siyasî-Nizamî" ya PDK Îranê, birêz **Hesen Şerefî** li ser girîngiya 26'ê Sermawezê û rewşa îro ya Kurdistanê axivî ku deqa wan gotinan di vê hijmara Agirî(30) de, dê bikeve ber çavên xwendewanên hêja.

Di vê rê û resmê de xelata rêz girtinê ji Pêşmergeyên dêrîn ji aliyê Komîsiyona "Siyasî-Nizamî" li ser çend Pêşmergeyên dêrîn yên Partiyê hate dabeşkirin ku **Mam Rasol Ceferî** bi nûnerayetiya wan Pêşmergeyên dêrîn





ew xeleta ji destê birêz **Mamosta Ebdula Hesenzade** wergirt.

Her wisan ji aliyê Komîsiyona "Siyasî-Nizamî" ve bi hinceta birêvebirina **Duyemîn Festîvala Pêşmerge** rêz ji hêza parêzgarî ya Partiyê hate girtin û xelatek ji Fermanderê vê hêzê re hate dayîn.

**Hunermandên navdar Reşîd Feyzînejad û Qadir Qurbanî rê û resm coşandin**

Li drêjahiya rê û resma Roja Pêşmergeyê Kurdistanê de, ji aliyê hunermendên hêja **Reşîd Feyzînejad** û **Qadir Qurbanî** û koma hunerî ya Lawan û Koma govenda Navenda du ya Kurdistanê çend stiranên niştimanî û dawet û dîlanê pêşkeşî beşdarên rê û resmê bû.

Di pareke din a vê rê û resmê de Sekreterê Giştî yê PDK Îranê birêz **Mistefa Hicrî** xelatek rêzgirtinê li ber tekoşîna **Reşîd Feyzînejad** jê re pêşkeş kir û rê û resm bi xweşî û şayî bi dawî hat.

# Deqa axavtina birêz Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê di rê û resma 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê de

**Hevalên xweştevî!**
**Xwîşk û birayên hêja!**

Îsal jî li 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê em li devra hev kom bûne da ku rêz û hurmetê ji Pêşmergê Kurdistanê bigrin, ji xebatkarên gelê me, ewên ku di çepera pêşahiya xebatê de cihgir bûne. Pêşmerge kî ye ku divêt rêz jê bihê girtin? Çima divêt em rojeke xasmanî bi navê Pêşmerge bikin? Renge ne gotina min û ne zimanê tu keseke din nekare bi peyvan şîmaya Pêşmerge bide nîşandan, pitir ji vê çendê ku Pêşmerge bi kiryar bi xwe, xwe bi civatên xelkê Kurdistanê û bi raya giştî re, heta ji derveyî Kurdistanê jî nasandiye, ger ne bi kurtî bibêjim, Pêşmerge ew xebatkar û tekoşerê Kurd e ku xwediyê bîr û baweriyeke azadîxwazane ye, bi armancên neteweya xwe re biwefa ye, parêzerê keramet, namûs û şerefa gel û neteweya xwe ye. Pêşmerge ew mirovê/a can li ser dest e ku canê xwe goriyê parastina xortên gelê xwe dike, jiyana xwe di rêya jiyana bextewerane ya gelê Kurd de fîda dike, lewra Pêşmerge di dilê civatên xelkê kurdistanê de bicih bûye. Lewra ye ku peyva Pêşmerge peyva ser zarê mezin û biçûkan e, ji ber vê çendê ye ku Pêşmerge heta di çanda neteweyên din de jî cih girtiye. Dema ku navê wê/î tê û peyva Pêşmerge tê ser zaran, rûçik û rûmeta xebatkareke Kurd dikeve ber zehn û berçavê mirov ku fîdakar, xebatkar û berxweder e. Tex û qateke wisan xebatkar û xwe gorîkar di civakê de yanî Pêşmerge, herdem di nav gelê Kurd û neteweya Kurd de rêz jê hatiye girtin û hertim wekî sembola xebata me ya berheq û tevgera me ya dîrokî û li rojên dijwar bi piştevan û alîkarê gelê me hatiye hesibandin, heq e li hember Pêşmergên me de wefadarbûn bihê xuyakirin, emeknasî li hember wan were nîşandan û kêmiya wên linav kirina rojekê ye bi navê **Roja Pêşmerge**.

Kîjan roj Roja Pêşmerge ye? Heke bingeh li ser vê yekê bihê danîn ku Roja Pêşmerge ew roja ye ku Pêşmerge di vê rojê de afirandinek encam dabe, fîdakariyek kiribe, parêzgarî ji keramet, namûs û şerefa gelê xwe kiribe, canê xwe tê de gorî kiribe,



**cîhan di halê guhartinê de ye, mijûl e guhartineke micid di ser de tê. Heq e em jî tenê pişt bi metodek ji xebatê qahîm nekin. Metodên din yên xebatê jî biceribînin û xwe tevî terzên cuda yên xebatê hevaheng bikin, zêdetir ji caran û ji hemû metodên rewa û meşrû yên xebatê jî mifahê werbigirin**

eva divêt em bibêjin, hemû rojên salê roja Pêşmergeyên Kurdistanê ye, lewra jî hemû rojê roja rêzgirtin ji Pêşmerge û derbirîna wefadarî û emeknasiyê li hember Pêşmerge ye. Lê bona vê çendê ku di rojeke diyarîkirî de hemû civatên xelkê Kurdistanê, tev xortên gelê Kurd bi hev re û bi ser hev rêz ji wan xortên fîdakar bigrin, roja 26'ê Sermawezê, wekî Roja Pêşmergeyê Kurdistanê, avakarê Pêşmerge, PDK Îranê ku di sala 1363(1984)'an de ev roje bi navê Pêşmerge navand.

Çima 26'ê Sermawezê? Di vê rojê da û li sala 1324(1945)'an de, hêza çekdar ya Kurd şûnwarên hikûmeta Pehlewî li bajarê Mehabadê ji holê rakir û di vê rojê de jî ala Kurdistanê li Mehabadê hate hildan, ew hêza çekdar bû ku piştre navê pîroz yê Pêşmerge li ser de hate danîn, ew ala ku niha jî Pêşmerge ji bo bilindgirtina wê xebatê dike û canê xwe gorî dike û di çepera pêşahiya parastinê de ye. Lewra roja 26'ê Sermawezê, ew roja girîng û dîrokî ji Pêşmerge pîroz be û navê pîroz yê Pêşmerge jî ji wê roja dîrokî ku li ser danîne, pîroz be.

Gelê me û hemû azadîxwazên welatê me di bin desthilata rejîmên dîktator de herdem li ber gef û êrîşê de bûne û nemaze di serdemê Komara Îslamî ya Îranê de. Eşkere ye ku her êrîşek bo ser gelê Kurd, li berahiyê de ji bo wan e ku di çepera pêşahiya xebatê de ne û li vir Pêşmerge jî sîngê metalê li hember dijminan de ye, lewra Pêşmerge çiqila çavê dijminên gelê xwe ye, ji ber vê çendê berî hemûyan û pitir ji tevan dikeve ber êrîşê û heta cehd û tekoşîn tê kirin ku kesayetiya mirovî û azadîxwazane ya wê/î bihê perçiqandin û di riftarê de buxtanan jê re çê dikin, eva jî di halekê de ye ku Pêşmerge di sêwiya herî bilind ya xebata dijwar û giran a çekdarî de qet usûlên mirovî û ev pirensîpên ku pesendkiriyên navneteweyî ne, nemaze di peywendî tevî êxsîrên şer de bin pê nekirine, hergav li berçav girtine û parastine.

Ne ecêb e heke dijminên gelê me mîna ku bi giştî êrîşê dikin ser neteweya me, pitir êrîşê bikin ser Pêşmerge û ne ecêb e heke hewl û cehdê bidin sîma û rûmeta Pêşmerge têk bidin, ya ecêb eva ye ku hin kes xwe bi Kurd dizanin û hin kesên bi rûyekî rewşenbîr, dixwazin wilo bidin xuya kirin ku xebata çekdarî kevin bûye. Heke Kurdistan ne avedan e, heke bi çavek ewlekarî ji Kurdistanê re tê nihêrîn, tawana wê bi hebûna xebata çekdarî di Kurdistanê de dihesibînin, çi nû û taze ye, çi kevin e?

Rast e di wan welatan de ku desthilat li dest xelkê de ye, xelk xwediyê maf û azadiyên xwe ne û desthilateke demokratîk li ser kar e, çi hewcehiyek nine neteweyek xebata çekdarî bike, yan metoda xebata xwe wek xebata çekdarî birêve bibe, belê di welateke dîktator de, desthilateke dîktatorî ku maf û azadiyên xelkê binpê dike, her dengeke azadîxwazane bi agir û hesin bersiv dide. Ji bo ser meşên xelkê êrîş tê kirin, heke ew gel berevaniyê ji xwe neke, heke ew gel û xortên wê yên xebatkar berevaniyê ji hebûna xwe nekin û ji bo gihîştin bi mafên xwe nexebitin, ew gel mehkûm bi jinavçûnê ye. Gelo di welatê me de ev demokrasiye heye ku gelê Kurd daxwazên xwe yên bingehîn tê de bîne rojevê û nehê serkut kirin û çewisandin? Gelo îmkana bas ji demokrasî û mafên neteweyî heye? Ku tevî serkut, kuştin, girtin û îşkencê berbirû nebe. Ku wisan e di wan cihan de ku demokratîk in, gelek metod ji xebatê kevin bûne, lê li wan cihan ku ji bo xwe hikumdariyeke kevin heye, her awayek ji awayên xebatê bi terzeke usûlî birêveçûna meşrû e.

Ger em li derdora xwe binihêrin her li rex me, em Îraqê û Kurdistana Îraqê dibînin ku

mideheke dûr û dirêj e Kurd di xebata çekdarî de bûye, heta dema ku rejîmek dîktator li ser kar bûye û delîve û îmkana anîne rojeva xwast û daxwazan nebûye, lê em dibînin her yên ku xebata çekdarî dikirin niha ber bi sindoqên dengdanê ve diçin, daxwazên xwe bi deng û dengdanê tînin ziman û tu kes jî nine ku wan tepeser bike.

Belê li vir de xebata çekdarî hewce nine, ger Kurdistan avedan nine, xebata çekdarî tê de birêve çûye, di rastî de zaf cihên din di welatê me de hene ku xebata çekdarî tê de nemeşiyaye û nemaze ji Kurdistanê jî pitir di paşvemayînê de hatine ragirtin. Gelo azadîxwazên Îranê yên ku niha di girtîgehan de ne, xebata çekdarî kirine? Ev kesayetiyên ku bi guneha azadîxwaziyê bi destê terorîstên Komara Îslamî vir û wir hatine kuştin u teror kirin, xebata çekdarî kirine? Ku wisa ye pirs eva nine, pirs metoda xebatê nine. Kakila anîne rojeva daxwazên demokratîk, anîne rojeva xwast û daxwazên gelê me azadî û demokrasî û mafê neteweyî, sedemên êrîşa Komara Îslamî bo ser gelê me û qirkirina gelê me ne. Her di vê derheqê de ez hez dikim bibêjim ku pêvajo û awayê bûyerên cîhanê bilezî pêş diçe, zaf zirûf guherîne. Derfeta meşandina zaf şêwe û metodên xebatê jî ji bo Kurdan derketiye holê. Gelê Kurd di qasê herî zor û bilind yê hişyariya neteweyî a xwe de ye. Heya qaseke zor agahiya siyasî a xelkê Kurdistanê jor de ye. Ku wisan e di vê zirûfê de ku cîhan di halê guhartinê de ye, mijûl e guhartineke micid di ser de tê. Heq e em jî tenê pişt bi metodek ji xebatê qahîm nekin. Metodên din yên xebatê jî biceribînin û xwe tevî terzên cuda yên xebatê hevaheng bikin, zêdetir ji caran û ji hemû metodên rewa û meşrû yên xebatê jî mifahê werbigirin. Di vê derheqê de hewce ye Pêşmergên Kurdistanê çi qas di meydana xebat û xwîndan û berxwedaniyê de jêhatî û çeleng bûne, divêt heya wê qasê jî di meydana xebat û tekoşîna siyasî û dîplomasî û teşkîlatî û rêxistina xelkê û karê piropagendeyî de jî bielimin û di van qonaxane de jî serkevtî û çeleng bin. Her metodek ji xebatê di her zirûfekê de derfet û navberek tewaw yan zor heye û terzek ji xebateke din jî kêmtir. Me ku ji hemû terz û metodên xebatê mifah wergirtiye û di çepera hemû van xebatane de jî em perwerde bûne, em dikarin bi serketina yekcarî hêvîdar bin.

Ez hez dikim di vê rê û resmê de bi kurtî qala du pirsan bikim:

Yekem, axavtinên vê dawiyê yên Mehmûd Ehmedînejad, Serok rejîma Komarê Komara Îslamî ye. Me ji bîr nekiriye ku her vê sala ku hilbijartina Serok Komariyê birêve çû û Mehmûd Ehmedînejad wekî Serok Komar diyarî kirin, me pêşdîtina vê yekê kiribû ku pêlên din ji tepeserkirina azadîxwazan û xelkê welatê me derkeve holê. Ji ber ku mohreyên zor kêm siyasî, pitir ewlekarî û leşkerî û kabîneya wî ji dengvedanek ji naverok û kakila xwe û rejîma xwe ye. Lê çavnihêriya wê ku axavtinên wiha bike, helwêstên wiha bigire û bi terzek micid dubendî û dijberiyê biafirîne û fitnê di astê herêmî û cîhanî de biafirîne renge kêm kes çavnihêrê vê yekê ba. Ehmedînejad li destpêka heyva borî li konfiransa cîhana bê sehyonîzm de da xuya kirin ku divêt Îsraîl li ser xerîteya cîhanê nemîne. Ew gotina wî di destpêkê de tevî vê çendê ku di konferanseke fermî û ji zimanê berpirsyareke fermî yê Komara Îslamî der ket, belê ne berpirsane û pitir "Îhsasî" hate hesibandin hetanî helwêsteke micid. Lê di nîviya





meha Sermawezê de ku li encama konferansa welatên Îslamî li Mekê, naveroka wê helwêstê dubare kir û çend rojan berî niha jî di civîna bajarê Zahêdanê de li ser de tekez kir, tekez kirina rêberên din yên rejîmê hate rex wan.

Ji raya giştî ya cîhanê re xuya bû ku ev rejîme çi rejîmek e û ev gotinane dikare çiqas dijberî û nerazîbûnê di asta cîhanê de pêk bîne. Lewra em niha dibînin bîr û raya giştî ya cîhanê û piraniya dewlet û welatan wan gotinan mehkûm û şermezar dikin û partiya me jî wan gotinên ne berpirsane, dijberî kirin û fitnekar dizane û mehkûm dike, ev gotin dikarin vê çendê bidin xuya kirin ku rejîmeke wilo serberedayî, rejîmek ku bêtirs qanûnên navneteweyî binpê dike, mafê mirovan di hundirê Îranê de binpê dike, azadîxwazan difetisîne, heke çeka etomî bidest bixe, çi bûyerek dê biafire û dikare çi fitne û aloziyekê di herêmê û cîhanê de pêk bîne, lê belê li rex vê çendê jî de naverok û rûçikê rastîn yê Komara Îslamî careke din jî raya giştî ya cîhanê re derxist holê û her li rex vê çend rewayî û berheqbûna xebata gelên Îranê û li serweyî hemûyan gelê azadîxwaz yê Kurd derxist holê ku tevî çi rejîmekê ji bo azadî û demokrasiyê xebatê dike. Heq e ku dunya bi çaveke rastir ji naveroka rastîn ya rejîma Komara Îslamî binihêre û mêzeyî xebata bi heq ya azadîxwazên Îranê bike.

Pirseke din ku em bi kurtî bibîr dikin, ew meş û serhildana pan û berfireh ya nerazîbûnê bû ku xortên gelê Kurd li Kurdistana Îranê di havîna Îsal de ji xwe nîşan dan. Ew meş ku piraniya herî zor ya bajarên Kurdistanê bi xwe girtin, hilgirê du peyamên girîng bûn: Yekem, eva ku gelê Kurd serbarê tund û tûjî, zext, givaş û çewisandinê dest ji daxwaz û xwestekên xwe yên bingehîn, demokrasî û misogerbûna mafên neteweyî ber nade, ev piropagenda betal û pûç kir ku demokrasî û mafê neteweyî dirûşma hin partî û aliyan in û civatên xelkê Kurdistanê jê bêpar in, da xuya kirin ku demokrasî û mafê neteweyî daxwaza hemû gelê Kurd li Kurdistana Îranê ye û di vê derheqê de serkut, çewisandin, îşkence û kuştina xortên me nikare me ji vê rêya ku pêş girtiye, heta gihîştin bi armancan vegerîne.

Peyama duyem, hevgirtin bû, ev hevgirtina bêwêne ku hat nîşandan, heq e, heta bikeve ber çavê dijminên me jî ku serkut û fetisandina parek ji xortên gelê Kurd di parek ji Kurdistanê nikare gelê Kurd li beşên din yên Kurdistana Îranê bêdeng û bê helwest bike, daxuyand ku gelê Kurd yekbûyî û hevgirtî ye, daxwaz û xwastikên gelê Kurd wekî hev in, di derbirîna wan de yek in, di dengê xwe de, di gavavêtinên xwe de û di xebata xwe de hevgirtî ne û ev yekbûyîna pîroz be. Em hêvîdar in gelê Kurd her wisan hevgirtî be û xebata gelî û giştî berfirehtir be ku bêguman li rex birêveçûna metodên din yên xebatê dikare berçav û bandordar be.

Boneya roja Pêşmerge ye, gelek bernameyên hunerî û yên din hene, dema we nagirim, gotinên xwe bi vî awayî di dawî tînim:

**Silav ji 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê**
**Silav ji Pêşmerge, xebatkarê/a xudan bîr û bawer ya/ê Kurd, cîgirtî di çepera pêşahiya xebatê de**
**Silav ji PDK Îranê, damezrênerê Pêşmergr, diyarker û danerê Pêşmergeyê Kurdistanê**
**Spas ji pişikdariya we re.**

***

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**(Beşa 19)**

**Kurmanc HAKKÎ**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**Beşdariya siyasî**

Teoriya demokrasiya li ser bingeha beşdariyê[1] li dehsalên 1960–1970'an de alîgir hebûn. Bingeha wê teoriyê hebûna rexne li demokrasiya mînîmal ku me li beşên berê hin li ser peyiviye û demokrasiya ser bingeha nûnerayetiyê xasmayî hizra lîbiral demokrasiyê hebû. Li gor demokrasiya beşdarî di demokrasiya mînîmal de bala destpêkî ser hilbijartinan û bûyerên pêwendîdar bi hilbijartinan û beşdarî bi awayên din nakevin ber bala biryarderan. Ji bilî wê yekê otonomiya welatiyan di demokrasiya mînîmal da bi awayeke berfireh nehatiye şirove kirin. Alîgirên demokrasiya beşdarî bi giştî rexneya xwe ji demokrasiya ser bingeha nûnerayetiyê bi vî awayî digirin: Li gor wan welatî dema bi dengdanê nûnerên xwe hildibijêrin berpirsayetiya exlaqî, biha û nirxê xwe teslîmî van nûneran dikin yên ku bi awayeke kollektîv hatin hilbijartin.

Di wan çend beşên dahatî de emê li ser pênasekirin û şiroveyên çemkên jêrîn rawestin:

(i) Teoriya wîsta giştî: Ji bo ku biryarên siyasî di nav welatiyan cih bigirin û otonomî û azadiya welatiyan bi awayek berfirehtir bê parastin beşdariya welatiyan di hilbijartinan de hewce ye.

(ii) Teoriya demokrasiya ser bingeha nûnerayetî: Beşdariya siyasî ya welatiyan di biryarên siyasî de li rêya hilbijartina nûneran dibe hegera çalak bûna xelkê û têgihîştina siyasiya wana pêş dikeve. Ewa jî merca biryara ne baş û birêvebirina rast e. Di vê teoriyê de amaje bi aliyên erêniye (posîtive) akamên hilbijartina nûneran tê kirin û baverî ser wê yekê heye ku di vê rêyê de baştirîn akam tê wergirtin.

(iii) Ji bo ku mirov fêr bin bi awayek dilxwaz û azad mirovên din berçav bigrin, beşdarî li çalakiyên civakî hewce ye. Di vê teoriyê de aliyên erêniye beşdariyê hatine şirove kirin.

Di despêka beşê de em vê teoriya Rousseau (i) ku bi kilasîka wateya demokrasiyê hatiye nas kirin, şirove bikin. Li gor wê teoriyê beşdariya siyasî bi wateya hevjiyana aştîxwazane û qenc tê, ku tê de autonomî û azadiya welatiyan hatiye misoger kirin. Di gel teoriya Rousseau em dê hinek li ser teoriyên popolîstî li ser hizra biryar li gor dîtina piranî jî rawestin. Li gor teoriye dinê



beşdariya siyasî ku bi teoriya Millî tê nas kirin beşdariya siyasî dibe hegera çalaktir bûna welatiyan û geşekirina asta têgihîştin û berhevdana wana. Bi wî awayî em dikaribin wan her dû teoriyane bi *teroriyên demokrasiya li geşe kirinê*[1] de bidin pênase kirin. Geşekirina şiyana siyasiye welatiyan bingeha birêvebirin û biryardanên başe civakî ye (ii).

Di beşek din li basa xwe de em dê li ser teoriya wezîfeyên welatiyan li demokrasiya ser bingeha beşdariya civakî (iii) rawestin û herwisa di dawiyê de em dê demokrasiya bihêz şirove bikin.

**Pênaseya demokrasiyê li ser bingeha berjewendiya giştî**

Jean – Jaccques Rousseau (1712–78) di pirtûka xwe ya *Peymanên civakî* [1](1762/1997) de ev peyvên bi nav û deng nivîsandine: "mirov bi azadî ji dayik bûye lê ev girêdayî her derekê ye." Li gor wî di sirûştê de yan li derwey hebûna sîstemê da azadiya mirov bi wateya bê minetî û girênedana wî bi mirovên din tê. Di sîstemê de pêwendiyên mirovan tê guherîn. Di rewşeke wilo de di şûna siruşt çarçoveya azadiya mirov exlaq xuyanî diket. Mirov azad in dema ku di çarçoveya exlaqiya xwe de hels û kewtê dikin.

Rousseau dixwaze bersîva pirsyara wiha bide: Erê gelo mirov dikare sîstemeke siyasî damezrîne ku tê de azadiya mirov hatibe misoger kirin? Şiroveya Rousseau li ser azadiyê çend rehendî ye. Bi awayek giştî dîtina wî wilo tê fêm kirin ku: Welatî dikaribin beşdariyê di yasadanan û diyarî kirina çarçoveya exlaqî û azadiya xwe de bikin.

Li gor wî azadiya welatiyan bi yasayên dewletî hatiye girêdan û ew dema ku welatî li pesend kirina wan yasayên ku bi navê *wîsta giştî*[1] têde beşdariyê dikin, azadiya xwe didin destê dewletê. Wîsta giştî bi wateya berjewendiya civakî tê ku têde berjewendiyên takên civakê hatibe berçav girtin û bi wîsta hemiyan bê nas kirin. Li gor Rousseau hinek caran biryarên li ser bingeha piraniya dengan dibe sebeba parastina wîsta giştî. Bi wî awayî em dikarin Rousseau hem demokrat û him jî alîgirê serxwebûn û autonomiya takê mirov bizanibin.

Wiha tê xuyanî kirin ku bi baweriya Rousseau biryara li ser bingeha dengê piranî bê şaşiye û kêmanî diviya vê rastiyê qebûl bike ku di hember wîsta giştî de şaş bûye. Wê demê kêmanî diviya bê naçar kirin ku bingehên berjewendiyên giştî biparêzin an li gor wî "wana naçar bikin azad bin". Ewî şiroveya wê yekê bi wî awayî kiriye ku takekes diviya demekê wîsta giştî ku li gor dengê piranî hatiye biryardan qebûl bike ku di biryardanê de mercên biryardanê bi awayek adilane hatibe berçav girtin. Bi wî awayî hemî biryarên demokratîk adilane nînin û nikaribin li berjewendiya giştî de bin.

Rousseau ji bo wîsta havbeş dengdan û biryar li gor dengên piranî bo hinek civak û rewşên taybetî daye diyar kirin. Li gor wî biryara li gor dengê piranî demekê nûneratiya wîsta giştî dike, ku civak biçûk û yeksan bît. Li gor wê pênaseyê dengdan û biryardan li ser çarenivîsa Îranê nikare wîsta giştî di xwe de bigre û dadperwerane be. ji ber ku heger bêt û sîstemek demokratîk di Iranê de hebe, ku têde sîstema birêveberiyê li gor dengên piraniya be û mafek distûrî bo kêmaniyên neteweyî an gelên din yên Îranê nehatibe diyarî kirin. Wê demê bo nimûne gelê Kurd bi 10 milyonan kêmaniye hemberî raya giştiye xelkê Îranê û biryarên piraniyê nikare ji bo gelê Kurd dadperwerane be.

Ji bo pênase kirina *wîsta giştî* bi awayek demokratîk diviya mafê hemî welatiyan hatibe berçav girtin û welatî xwediyê tiştekê bin ku bikaribe serxwebûna wana biparêze. Dewleta Tirkiyê bi navê wîsta giştî hemî mafên demokratîke gelê Kurd li Tirkiyê pelixandine. Ji ber ku wek gelek xwedî nasname nayê nas kirin û gelê Kurd xwediyê tu maf yan pênaseyekê nine ku mafê wî yan taybetmendiyên wî yên neteweyî bên berçav girtin. Ji bo welatên ku pirsa Kurd hene, demokrasiya li gor dengên piranî û li ser bingeha hilbijartinan nikaribe bibe çareseriya pirsgirêkê. Lewra hewcehiya şirovekirina demokrasiyê ji

aliyê van hêzên ku xwazyarê demokrasiyê bo welatê xwe ne erkek rojev e.

Di civakên îdeal de jî ku biryar bi awayeke demokratîk tên dan bê şaşî nînin. Di dema biryardanê de dikare zaniyariyên şaş bibe sebeba biryarek ne dirust bi berjewendiya hinek aliyên din û dijî berjewendiya taqên taze. Sala 2003’an li hilbijartinên perlemana Finlandê, ku yek ji welatên îdeale demokratîke partiya muxalifet (opozîsyon) bi anîna hinek belgeyên nerast, bû sebebê wê ku dewleta Sosyal Demokrat li Finlandê cihê xwe bide dewleta muhafezekar bi serokatiya hizba navendî. Seroka Partiya Muhafezekar, xanim Anneli Jäätemäki di piropagendeyên xwe yên hilbijartinê de bi şaşî hin zanyariyên nepenî yên wezareta derewe ya welatê xwe eşkere kirin ku li gor vana dewleta sosyal demokrat di gel Corc Bûş peymana nihênî girêdane û piştgiriyê li şerê Emerîka dijî Îraqê dikin. Ew zanyariyên şaş paşê serkevtina hizba muhafezekar a Keskusta hat aşkira kirin û yek li skandalên siyasiye herî mezine dîroka welatê Finlandê saz bû û serok wezîra Finlandê Anneli Jäätemäki kêmtir li 45 rojan bû serok û di dawiyê de neçar ma ku dest ji dewletê hilgire û serokatiya partiya xwe jî cih bihêle. Bi wî awayî partiyeke mezin baweriya piraniya civakê ji dest xwe da. Li gor Rousseau biryarên ku ji bo welatiyan ser êşeyek mezin pêş tînin diviya bi destê birokrat û karmendên dewletê bihê dan, yên ku sozdarin ji bo parastina berjewendiyên giştiye welatiyan.

Li gor Rousseau welatî dema dariştina distûra welatê xwe dikevin bin îrada exlaq û rewişta xwe ji bo parastina wîsta giştî. Beşdarî li piroseya amadekirina distûrê dibe sebebê wê ku welatî bi awayek berfirehtir û dûrbîntir mesela mafê xwe lêk bidin. Encama beşdariyê xwe wek hevdîtina welatiyan bi awayek berîntir ji berê ye. Bi wî awayî beşdarî li piroseya amade kirina distûrê dibe sebebê pêşveçûn û geşe kirina civakê.

Ev mijare li hejmarek din da jî vê bê dom kirin.

[1] دمکراسی مشارکتی.
[2] دمکراسی در حال توسعه.
[3] اراده مشترک.
[4] Du Contrat Social

***

Berpirsiyarê Pêwendiyên Derve yê PDK Îranê Birêz Xusro Ebdullayî:

# YEKEMÎN KESÊ KU PIRSA KURDAN BI DERVE DA NASKIRINÊ, DR. QASIMLO BÛ

**Hevpeyvîn: Dilbixwîn Dara**




**Kek Xusro hûn ferqeke çawa di navbera rêjîma Ehmedînejad û ya Xatemî de, di derbarê pirsa Kurdên Rojhilat de dibînin?**

Em tu ferqê nabînin. Hemû melle ne, hemû yek in. Eger ku pirs bû pirsa Kurdan tu ferq di navbera wan de namîne. Di pirsa demokrasî, mafên mirovan, azadiya gelên Îranê û di serî de mafên gelê Kurd, çi Ehmedînejad be, çi Xatemî be, çi Refsencanî be, tu bername û siyaseteke wan nîne. Xatemî dixwest hinek maf û azadiyên biçûk bide û rêjîmê pê biparêze, ne mafên gelan ku em lê difikirin, lê hinek tiştên biçûk, lê ev rêjîma Nejadî, difikire ku dikare bi lêdan, serkut û kuştinê biparêze. Ferqa her du rêjîman belkî ev be.

**Çare çi ye?**

Tenê çareyek heye, ew jî guhertina wê rêjîmê ye. Ev rejîm ne demokrasiyê dinase, ne jî mafên gelan û bi taybetî jî mafên gelê Kurd. Ji ber vê yekê çûyîna vê rêjîmê ferz e. Dema ku ev rêjîm çû, wê biçe jî, wê rêjîm bi destê gelên Îranê biçe, bi destê gelên bindest: Kurd, Azerî, Turkmen, Ereb ... û yên mayîn, %60 Îranê ji van gelan pêk tê, wê demê em dikarin bêjin li Îranê demokrasî pêk hat û mafên mirovan hatine parastin.

**Weke berpirsiyarê pêwendiyên derve yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, di warê navneteweyî de têkiliyên we di çi radeyê de ne?**

Bi salane têkiliyên me yên navneteweyî hene, yanî di demekê ku tu partiyeke Kurd nûneriya wê li derve tune bû, ji sala 1981’an de nûneriyên me li derveyî welat hene. Têkiliyên me bi welatên Ewropa re, bi Amerîka û gelek welatên din re xurt in. Ne ji ber wê ku Amerîka ketiye herêmê, ji berê de danûstandinên me bi Amerîka re hebûn, nûneratiya me li Waşîngtonê hebû, texmîna min yekemîn kesê ku pirsa Kurdan bi derve da naskirinê, Dr. Qasimlo bû. Divê mirov li vê derê bibêje, Qasimlo mesela kurdî kire meseleyeke navnetewî.

**Tê gotin ku girupeke xurt li Îranê li dijî Ehmedînejad heye?**

Ew problemên hundirî ne. Derdora Ehmedînejad grupeke xurt ji mafya û çetan heye. Weke hûn dizanin ew ji nava Pasdaran tê, ew mafya ne, qatil in. Ji wezîrê derve bigire heya yê herî biçûk di hikûmetê de yek didu ne têde, yên din hemû pasdar in. Hemû jî cînayetkar in. Meselen Ehmedînejad yek ji wan kesan e ku di şehîdkirina Dr. Qasimlo de destê wî hebû ye.

**Min bihîst ku hûn dixwazin kanaleke televîzyonê ya satelîtê vekin, tiştekî wiha heye gelo?**

Weke tu jî dizanî, ev tiştekî pêwîste, dinya ne weke berê ye, dinya bûye dinya yamedyayê, dezgehên ragihandinê û bi taybetî televîzyon tesîreke wê ya mezin heye. Tiştekî pir siroştiye ku Kurdên Rojhilatê Kurdistanê bibin xweî kanaleke televîzyonê. Ne tenê yek, eger ku ji dest wan hat, belkî du-sê kanalan jî ava bikin.

Ez vê bibêjim, di dahatûyeke pir nêzîk de hetmen wê Kurdên Îranê televîzyonekê ava bikin.

**Ji bo ku we dema xwe da vê hevpeyvînê spas dikim.**

Ez jî spas dikim û ji AVESTA re serkeftinê dixwazim.

# Komara Îslamî û rewşa ciwanan!

Dara Natiq

Rejîma kevnarperwer û dijî gelî a Komara Îslamî, her di destpêka bidestve girtina deshilatê di Îranê de û bi talan birina destkevtên şorişa gelên Îranê heya niha, gelên Îranê bi giştî û bi taybetî nifşa ciwan bi zaf arîşe û girêpêçkan re berbirû kirî ye.

Rayedarên Komara Îslamî her di destpêkê de, bi pêşvegirtina siyaseta dijî gelî û biyom ya xwe, pêşiya her terze bizavekî siyasî û çandî ji xelkê Îranê girtin û bi rêvebirina sinariyoya bi nav **“Şorişa Çandî”** tevahiya zanîngehên welêt ji fîlterê dan û bi bilindkirina hin dirûşmên fantazîkî û pirxapêner cehda herçiqas zêdetir kontirol kirina navend û zanîngehên welêt dan ku di rastî de ev siyaseta rejîmê derbekî giran ji ciwanên azadîxwaz û dijî serberedayiyê da ku di zanîngehan de mijûlî xwandinê bûn.

Piştî vê siyaseta hov û nemirovane rayedarên Komara Îslamî bi bilind kirina dirûşma hinartina şoreşê bo derveyî welêt û mifah wergirtin ji rêyên cur be cur hejmareke zaf ji ciwanên welêt xapandin û kirin goriyê 8 sal şerê bê encam û kavilker yê navbera Îraq û Îranê.

Sepandina çand û kulturên olî di nava ciwanan de û ji navbirina azadiyên takekesî, li hilbijartina partiyên siyasî heya ku hilbijartina cil û bergan, qedexe kirina pêwendiyên navbera keç û kuran, geşepêdana cudahiyên li navbera keç û kuran û herwiha tejî kirina naveroka pirtûkên xwendinê ji pirsên bê mifah û pûç, ji siyasetên din yên rejîma kevneparêz bi dijî nifşa ciwan bûn.

Serbarê behs kirina wan rastiyên jorîn, emê qala hin diyardeyên ku xelkê Îranê û bi taybetî nifşa ciwan niha tevî wan berengar in, bikin:

**Îtiyad:** Geşekirina îtiyadê yek ji mijarên herî berçav yên piştî şerê Îraq û Îranê ye ku roj bo rojê geşekirineke zêdetir bi xwe ve digire. Ev mijare jî yek ji siyasetên biyom yê Komara Îslamî



ye bo xapandin û jêhel neçûna astê hişyariya xelkê û bi taybetî ciwanan û dûr ragirtina wan ji her terze bizavekî siyasî, ronakbîrî, çandî û hwd... .

**Bêşolî:** Zor bûna nifûsa welêt ji aliyekê û nebûna delîveyên kar kirinê ji aliyekî din ve, bûye sebebê jêhel çûna astê bêşoliyê bi taybetî di nava ciwanan de, siyasetên çewt yên Komara Îslamî di warê aborî de, yek ji hegerên bingehîn yê geşekirina bêkariyê ye. Dahata welat ji aliyê çend girûp, sazî û binkeyên ku ser bi navendên olî yên biryardanê ne hatiye qorix kirin û pareke berçav ji wê dahatê bo kar û barên leşkerî û bi taybetî çêkirina çekên Etomî mifah jê tê sitandin. Hebûna fesada îdarî, malî, bertîlxwarin û dizî di nava dam û dezgehên rejîmê de ji arîşeyên herî sereke yên vê diyarokê ne.

**Hilatina mejiyan:** Her salê parek zaf ji hêza pispor û jêhatî ya welatê me ber bi welatên Ewropî û Amerîkayê ve koç dikin. Nebûna azadiyê di warên cur be cur de, nebûna serxwebûnê di şolkirinê de, nebûna dahatê, pêşwazî kirina welatên Ewropî û Amerîkî ji kesên xwedî şiyan û pispor, zext û givaşên siyasî, ji hegerên sereke yên koçkirina hêza pispor û ciwan ya welatê me ye.

**Leşfirotin:** Berbilavbûna diyardeya leşfirotinê bi taybetî di nava ciwanan de, diyardeyeke herî biyom e ku di 26 salên derbasbûyî de, serbarê hebûna hikûmeteke Îslamî roj bo rojê zêde kiriye. Hegera sereke ya vê diyarokê, kêm dahatî, hejarî û bêşolî ji aliyekê û xemsariya rejîmê derheq geşekirina mijarên wiha û nebûna şiyana îdarekirina welêt û hwd... ye.

**Îdz:** Geşekirina roj bo rojê zêdetir a nesaxiya Îdzê (HIV) di nava ciwanên Îranê û bi taybetî Kurdistanê de.

Serbarê bas kirina wan arîşe û girêpêçkên ku me li jor de qala wan kirî, lê mixabin zaf diyardeyên din weke: Meraq, xwekujî, bêhêvîtî û... berengarî ciwanên welatê me bûne û ev nifşa ciwan tûşî qedereke reş û nediyar kirine, ku hegera bingehîn ya wan hemû diyarokane dizivire ser desthilata biyom û siyasetên dijî gelî û nemirovane yên Komara Îslamî a Îranê.

## Perwerde û hînkirina Kurdistanê: Nabe fêrkar bi zimanê Kurdî waneyan bi zimanê Kurdî ji xwendekaran re rave bikin

Îdareya Perwerde û fêrkirina Parêzgeha Kurdistanê di biryarnameyekê de ji bo xwendinegehan û mamosta (fêrkar)yan da zanîn ku li ser kilasa xwendinê û di dema şîrovekirina waneyan de, nabe bi zimanê Kurdî biaxivin û her kes vê biryarê cî bi cî neke, ji aliyê îdareya perwerde û fêrkirinê ceza jê re tê diyarî kirin.

Ev biryara dijî gelî ya îdareya Perwerde û elimandina rejîmê di demekê de ye ku di qanûna bingehîn de basa xwendin û nivîsîn bi zimanê kêmaniyên neteweyî hatiye kirin, lê rejîm ne tenê vê birêve nabe, belkî xwendekaran ji mafê bihev re axavtin bi zimanê Kurdî jî di xwendingeh û kilasên waneyan bêpar dike. Her wiha divê eva jî bihê liberçavgirtin ku xwendekar di şîrovekirina waneyan de bi zimanê Kurdî baştir fêm dikin û mifaheke çêtir distînin û ev biryare tenê di dema xwendina wêjeya Farisî de cî digire.

## Şaredariya Seqizê 3 meh dibe miaşê kedkaran nedaye

Kedkarên Şaredariya bajarê Seqizê bo 3 mehan e ku ji aliyê Şaredariyê ve miaş û heqdestê xwe newergirtine. Her wiha di vê derheqê de bersîva wan kesên ku hatine xanenişînkirin, nehatiye dayîn. Hêjayî gotinê ye ku Kedkaran heya niha ji tirsê vê çendê ku ji aliyê Şaredariyê ve nehên bêkar kirin û miaşê wan nehê xwarin, nerazîbûneke wisan neday xuya kirin.

### Li Bokanê bikaranîna Hîroînê bû sedema mirina 3 ciwanan di dema 10 rojan de

Roja pêncşemî 22.12.2005’an, piştî 2 rojan, termê ciwanekê bi navê **Sultan Heyderî** di cihên rêtina kirsî li ser rêya Gol a Bokanê hate peyda kirin. Hêjayê gotinê ye ku navhatî bi sedema bikaranîna Hîroînê ji rêya derziyê di wî cihî de jiyana xwe ji dest daye. Di dema 10 rojên çûyî de eva sêyemîn kes e ku termê bi vî awayî tê peyda kirin.

## Xweşewitandina keçekê li bajarê Kamyaranê

Keçeka 16 Salî bi navê Hacer Rehmanî xelkê gundê Lin a ser bi bajarê Kamyaranê bi hinceta pirsgirêk û arîşeyên malbatî ve xwe şewitand.

Hejî gotinê ye ku di midehê 10 mehên borî de 19 kesan li bajarê Kamyaran û gundên derdora wê de cehda xwe kuştinê kirine ku 3 ji wan mêr û 16 ji wan jî jin û keçên bin 18 saliyê de bûne.

## Li Kurdistanê keçeke 16 salî xwe xendiqand

Li gorî rapora li Kurdistanê rêxistina mafên mirovan, li bajarê Kamyaranê, keçek bi navê Şilêr Xulamî xwe kuşt. Sedema vê bûyerê jî heya niha xuya nine. Her ev rapore dide xuya kirin ku di 6 mehên borî de heya niha 13 hejmarên xwekuştinê li bajarê Kamiyaranê hatiye dîtin. Herweha hemû kom û saziyên hikûmetê jî li hemberî vê bûyerê de bêdengî kirine û çi bername û rêçareyek ji bo pêşgîrî ji vê kiryarê nedane xuya kirin.

## Daliqandina ciwanekê di girtîgeha bajarê Seqizê

Ciwanekî 19 salî bi navê Ferhad Salih Pûr di yekem roja meha Befranbara îsal de di girtîgeha bajarê Seqizê de hatiye daliqandin. Navhatî salekê berî niha bi guneha kuştinê hatibû girtin. Herweha tê gotin ku wî ciwanî di kuştina nojdarekê bi navê Muherem de dest hebûye.

# Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

Beşa 4 û dawî

***Awayên din yên behrekişiya ji mirovan(Îstismar)***

**36)** Zarok divêt li hemberî her cure îstismarekê ku silametî û geşekirina wî rû bi rûyî tirsê dike, bihêne parastin û piştevanî kirin.

***Qedexe kirina îşkencê***

**37)** Çi zarokek nabe bikeve jêr îşkenceyê, riftarên zalimane û girtinên neyasayî. Dasepandina cizayên îdamê û hepsa hertimî divêt derheq zarokan de nemîne û bihêne hilgirtin.

***Pevçûnên çekdarane***

**38)** Çi zarokekî/a li jêr 15 saliyê de nabe li şer û pevçûnên çekdarî de beşdariyê biket. Dewlet divêt li çaxê pevçûnên çekdarî de ji zarokan xwedî derkevin û wan biparêzin.

***Hêzbexşîna bi zarokan***

**39)** Erkê li ser milê dewletan e ku ji zarokên derbe dîtî ji şer, riftarên xirab û îstismarê, piştgîriyê bikin.

***Bi hawar gihîştina taybetî a zarokan***

**40)** Zarokên li ser şeqaman û bê serperest ku tûşî karên neyasayî dibin, ev maf hene ku riftareke baş û hevşêwriyeke yasayî tevî wan bihê kirin û heta ku îmkan hebe cizayên tund bo wan nehêne derkirin.

**41)** Çi yek ji xalên peymannameya hazir, yasayên navxweyî yan navneteweyî ku hewce ye bihêne rêvebirin di wan welatên endam de û ew jî ku bona cî bi cî bûna mafên zarokan bibandor be, çi yek ji wan naxin bin bandora xwe de.

***Madeyên 42-54'an di warê çawaniya rêvebirina peyman û kiryarên dewletan de ne ku yên here girîng yên jêrîn in:***

- Nasyar kirina giştî xelkê, malbatan û zarokan bi naveroka peymana mafê zarokan re, bi mifah wergirtin ji terzên cur bi cur yên hînkirin, piropagende û agehdar kirinê.
- Pêkanîna komîteya navneteweyî a mafê zarokan bi merema lêkolîna li ser pêşkevtina welatên endam li cî bi cî kirina ehd û sozên di peymana mafê zarokan de.
- Bi merema cî bi cî bûna pitir ya mafê zarokan û zêdetir kirina hevkariyên navneteweyî di vî warî de, komîte dikare saziyên şarezatiyê, sindoqa zarokan a saziya NY û organên din yên saziya NY, gazî bike bona beşdariya di civînên komîtê, yan jî dana raporan.
- Komîteya mafê zarokan dikare ji saziyên şarezatiyê, sindoqa zarokan ya saziya NY û saziyên din yên xwedî selahiyet daxwaz biket ku hizrê pisportiyê di warê cî bi cî kirina peymanê bidine eyan kirin.

***Hewcehiya danîna peymannameya cîhanî a mafê zarokan***

Peymana cîhanî a mafê zarokan li gorî hewcehiyên zarokan ku çavkanî girtî ji pêdviyên jêrîn e, pêk hatiye.

***1: Girîngiya dewrana zarokatiyê***

Dewrana zarokatiyê di geşekirin û pêgehandina zarokan de girîngiyeke taybet heye. Di rastî de bingeh û esasa geşekirina cendekî, hişmendî, atifî û civakî ya zarokan di van salan de dikemile. Lewre baldana bi zarokan ji rêya danîna yasayên baş bo zarokan û tekoşîn di rêya çêtir kirina jiyana wan kareke pêdvî ye.

***2: Derbedîtina zarokan***

Zarok bi sedema şertên xwe yên temen zû dikarin derbê bixon û hewceyî piştevanî û lêşiyar bûna yên ji xwe mezintir in. Derbedîtina zarokan vê yekê dixwaze ku em bi danîna yasayên baş û piştevanî û lêşiyarbûna wan, rewşê ji bo geşekirin û silametiya wan di warê cendekî û ruhî ve pêk bînin.

***3: Ferq û cudahiya zarokan bi mezinan re***

Hewcehiya hebûna yasayên taybetî ji bo zarokan ji vê esla bingehîn a derûnnasî ve çavkaniyê digre ku zarok ne tenê li warê çendatiyê ve, belkî li warê çawaniyê ve tevî yên mezin ferq û cudahiyên bingehîn hene û xwastek, teybetmendî û hewcehiyên xwe hene. Lewma di warê hiqûqî ve jî hewcehî bi yasayên taybetî hene ku tev yên mezin ferq û cudahî heye.

***Taybetmendiyên Peymannameya Cîhanî a Mafê Zarokan***

Peymana Cîhanî a Mafê Zarokan hin taybetmendî hene ku wê ji peymanên din yên navneteweyî cuda dike. Taybetmendiyên herî girîng yên vê peymanê bi awayê jêrîn in:

**1:** Pejirandina giştî a vê peymanê
**2:** Pan û berfirehiya mixatebên vê peymanê
**3:** Nermiya vê peymanê
**4:** Giştî bûna vê peymanê
**5:** Lênêrîna zanistî a vê peymanê
**6:** Baldana bi binyata malbatê
**7:** Serwexttir bûna qazanc û berjewendiyên zarokan

***Wergeran: Şehab Xalidî***

# RAMAN

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Tiştê ku takekes ji lewir û ajalên hoveber vediqetîne û wî/wê radigihîne radeya mirovbûn û payedariyê, hizr û ramana mirov e.

Nexwe mirov ne wekî heyînêke jîndar ên din, ku tenê ji hestî û goşt pêk hatibe, an jî heyberekî ku tenê bixwe, vexwe, razê û tevdigere ye.

Kesê/a ku bi fikr û ramana xwe re ne li hev be û her wiha ji bo mirov û mirovahiyê tiştekî erênî û sûdewar nehizire, tu wate û qîmeta hebûna wî/wê jî nîn e. Heta bi qinyata min dê tunebûna wî/wê ji hebûna wî/wê fêdewartir be. Lewre kesên bêfêde, her gav xisaram û ziyandar e jî. Îcar ew ziyandariya wî/wê jî timî ji wê fikr û ramana wî/wê ya neçê û nelê dipale. Wekî ku Mewlana Celaledînê Romî jî dibêje: "Birayê(an jî xwişka) delal, tu ji ramanê pêk tê yî/ Ji bilî wê, tu hestî û goşt î/ Heke tu di gulan de bifikirî tu yê bibî gul û gulîstan/Tu di stirîyan de bifikirî tu yê bibî strîdarik…"

Tiştê ku jiyanê bi mirov dide hishisandin û hezkirin jî fikr û raman e. Mirov li gorî hizra xwe cihan û jiyana xwe şîrove dike û dinirxîne. Cihan û jiyana mirov li gorî sêwirandina wî/wê dişêwe û dirûv digire. Wekî Leo Buscalia dibêje: "Jiyan, kaxizeke wêneyê ye. Amrazê xêzkirina jiyanê di destê te ye. Tu dikarî bi heman alavan wêneyê bihuştekê xêz bikî(çêbikî) û tê de rûnêyî; kêfa belek bikî. Û her wiha tu dikarî wêneyê dojeheke har û dadayî çêbikî û heta dawiya temenê xwe wekî ezabê qebrê tê de bijî û biqijî." Rast e. Bikaranîn alav û amrazên jiyanê li gorî hizra mirov diguhere. Her mirovek li gorî fikra xwe wan alavan bi kar tîne. Mirov heye, di nav hebûneke bêpayan de, di xenîmeyên bêhemkûf de diçêre û xenî dibe; belê nêrîn û nêzîktêdayîna wî/wê neyînî û dojehî ye. Reşbîn e. Reş dinihêre. Û jiyanê qetil dike. Li aliyê din jî mirov heye di nava xizanî û belengaziya darê dinê de dixeriqe; belê xweşbîn e. Xweş dinihêre. Xweş dibîne. Hêvî û qinyatê belav dike…Ev herdu feraset jî ji binhişîne mirov dinimin û bi fikr û ramana mirov re der dibin.

Ji bo wê, di qada jiyanê de du fikr û ramanên bingehîn, belê dijber derdikevin pêşberî mirov. Yek, ramana pozîtif(erênî) ye. Û ya din jî ramana negatîf(neyînî) ye. Ramana pozîtif, şêwazeke erênî ye.Û mirov arasteyî başî, qencî û xêrxwaziyên jiyanê dike. Yên ku vê ramanê diparêzin, li hember hemû bêxêrî û bêkêriyên dinê yên tewş û neyînî derdikevin û bertekên xwe yên tund nîşan didin. Ramana pozîtîf, îro li ser hemû pêwendiyên ramyarî, aborî, çandî, hunerî û hwd. jî bandoreke erênî dihêle û gelek encamên fêdewar dide. Gelek bedhalî û nexweşiyên mirov ên derûnî jî bi saya vê ramanê pak dibin. Tenduristiya mirov bi vê fikr û hizra erênî re ji xetereyên erjeng û kujende reha dibe. Tebat û aramiya civakê bi saya vê fikrê bidest dikeve… Çimkî xweza û mirov her gav di nav nava bandor û hevhîkariyeke bêdeman de ne. Mirov bi saya fikr û ramana xwe, hem ji xwezayê sûd û fêdeyê werdigire û hem jî sûd û fêdeyê dide xwezayê. Di navbera hiş û bedena mirov de jî pêwendiyeke ku bi vî awayî ya ku rasterê têkildarî fikr û ramana mirov e heye. Fikr û hizrên ku di hişê mirov de dihewin, tesîreke erênî li ser jiyana mirov dihêlin û aramiyeke xurt didin bedena wî/wê. Mirov çi qasî aram û hêmin dibin, ew qasî jî bijûn û jîndar dibin.



Êdî îro riya serkeftin û bidestkeftinên rojane hemû di hizirînên erênî re derbas dibin. Ên ku vê raman û ferasetê diparêzin, xwe wêrektir, dilawertir û ewledartir dihesibînin û dihisihisînin. Lewre, yên ku raman pozîtîf diparêzin enerjiyeke pozîtîf belav dikin û dibin heval û hevrêyên kesên çalak û bilebatir. Belê ji hêla din ve jî, yên ku raman û feraseteke neyînî diparêzin, hene. Ew jî ji ber wê hizr û feraseta xwe, her gav di xisarê de digevizin. Ne tu fêdeya wan li wan dibe û ne jî li civak û civata wan…Bi hizra xwe re agir belav dikin. Der û dor dişewitînin. Mirovan berdidin hevdu. Şer û pevçûnên bênavber, helişîn û rûxandinên bêsûd, alozî û gengeşiyên tund û hwd. hemû ji vê ramana bêsûd sadil dibin.

Gotina dawî, wekî Anatole France jî dibêje: "Tiştê ku tehm û çêjê dide xwarinê xwê ye; tiştê ku wesf û wateyê dide jiyanê jî fikr û raman e."

## KULORA NAN

**Mişelê Osman**
**Bavê Nisrîn**

Belkî rojgar di rojekê de
bi mere girnijîn bibe
dîwarên biyaniyê
û pîrhevokan ...wêran bike
wê gavê..
emê goçên xwe berhev kin
dojehê û tewşbûnê belavela
kin
hêêê...şahjinê..
bijardeya xwenê li ser
textê tîbûna min
weyla li çavên teyî çelmisî
gava tu Pagenda xewê
li ser wan hildiweşîne
çawa ezê bi dûrbûnê
te bigrînim..?
û şînewiya wan...
derya dixemlînin..
hindek ji
rondikan..kevneşopa
derdaye..
û yê dîtir bazara germbûnê
bi dêman re dike..
lêvên girnijîn ji wan der
dibin.
peyamberî omîdane..
ezê bêm..ezê bêm...
ji dilsozîya te ..
dil hemû navendên hêviyan
dixwîne..
ezê bêm...
ezê bêm...
û divê ..xewnên me..
ji kulora nan firehtir bibe..
tiştê ku min çinî ji
dolemendên reş û rût
belengaziya mine..
ez jî wê diyarî..demê dikim
diyarî demê dikim.

# Bişenga min qey şer kara te ye?

EVÎN ÇÎÇEK



Dipirsim
Li kîjan bajarî hatî?
Dibê **“Ez Mahabadî me”**
Rindiya ku xwezayê daye wê temaşe dikim
Nikarim çavên xwe lê bigerim
Bê xwastina min
Bala min dikîşine ser xwe
Lê dinêrim
Nêrînên min li guliyên porê wê de darda dibin
Keziyan hev re dumunin
Gulî bênerme û bêmorî dimînin
Heta paniyê xwe ber didin
Wekî marên erd hembêzkirî tên xuyakirin
Sêr dikim
Mîna textên reng tarî
Û daristanên bi heşînayî xemilandî
Reşiya guliyen ku li piştê dibirqin
Bi delalî rûniştîne ser milên sêzde salî
Xwastin û armancên wê li me xerîb nayên
Nav civata me de rewşik pir xwezayî
Li bedena dewsê salî kincên leşkerî
Bi xwe bawer radibe, rûdinê
Bi çavên lêger li dora xwe dinêre
Sêr dikim
Gepên ji sêvên Meletiyê sortir
Çiqas bi dilxwezî, evînî diparêzin
Çavên ku tariya şevan xwe vê re kirine malxwayî
Sêr dikim
Bûrûyên ku wênekeran mecbûrî xêzkirinê dikin
Bûjang û çavên xezal hevdu bi kêyfê hembêz dikin
Lêvên gîlyaz şîrînaiyê bilav dikin
Gelek li xwe bawerin, ji kesî şerm nakin
Xwîna min dikelînin
Pir zêde lê hez dikim
Temaşevan im
Heniya li berfa tilikê çiyan sipîtir
Rindiya bûriyan, wê dikin nemir
Ew bi nazlibûna xwe dibêje;
“Ez sittiya wan çiyan
Azeba şev û rojan
Bûka zimagan
Pepûga pagan
Bilbila deviyan
Gulroja bostanan
Mêşa qovanan
Pilinga nav giyan
Teyra text û zinaran
Masiya nav çeman
Gûjoka deştan
Sipîndara dora kaniyan
Sorxima nav geliyan
Bîşenga dora golan”
Reşiya çavên wê bi baqilî dibirqiyan
Xwe kêm nedidît ji zanan
Sêr dikim
Didim xeberdayîn
Sêzde salî ye
Bejn û bala wê pir kurt maye
Eşkere ye, têr nexwariye
Girtiya jiyanê û
Hevala azadiyê ye
Sêr dikim
Tilliyên bedena nîvbirçî mayî
Bi kîjan xurtbûnê, çawa hesinê sar hembêz dikin
Çengên zirav nikarin çeka giran ji erdê rakin
Hezî hesinê reş dike
Mîna bûka ku li dar û paçan çêkirî hembêz dike
Bilindayiya wê û ya çekê yek e
Dixwaze xwe bide qebûl kirin
Bi hemû xurtbûna xwe rextê li erdê radike
Toza ser bi şûtika xwe paqij dike
Ser singê xwe re tênî dibe
Mîna mezinan girê dide
Navên hacetan dipirse
Bi xwastinik mezin hû dike
Şûtika piştê ba dide
Tîrêjên tavê destên sipî av dide
Hesinê xof sar hêdî, hêdî dibe parçekî jiyana wê
Hêla bavê ve bi seûtî mezin bûye
Sêzde saliya xwe de jî bê dê maye
Sêr dikim
Gotinên birê wê diqarînin û hêrs dikeve
Bi rûye tirş li erdê ra dibe
Bi wê bedena xwe ya jar
Bi dengikî hişk û xurt
Hember xwastinên birayê xwe derdikeve
Guhdarvanim, bê deng dimînim
Bi êşa dil dibêm xezala wan çiyan
Beybûna dora kaniyan
Gulşîlana zozanan
Buxika nav hêrgan
Tu ya sêzde salî
Çawa nav artêşe de
Li herêma şer dimînî?
Dengê çekan te natirsîne?
Ew, xwe mêvana bihiştê dihesibîne?
Ji kerbê bê deng dimînim
Nikarim zimanê xwe bilebitînim
Berpirsiyara sêzde salî re bibêm
Şervana delal
Tu qicikî?
Nikarî wî barî hilbigirî, rakî
Hestiyên te tîjî nebûne, pir sivikî
Qey ev çiya mane hêviya te?
Destên ku pirtûkan hembêzkin
Tilliyên ku bi hûnînê xwe çînik kin
Çima berê xwe dane çolan?
Şûna ciye germ, te re bûne doşeg kevir û dar
Dora te tijî dûpişik, marmarok û mar
Berxa kozan
Li wan xwastinên mezin were xwar
Tu ya ku hêdî hêdî balix dibî
Gora xwastina xwe xwarinê nabînî
Nav şer de bedena te kinik dimînî
Dawiyê de li tenduristiya xwe jî dibî
Heta ku bimirî berhemên encaman dikişînî
Bişenga min tu zarok î
Ku dest min de were
Ez nahêlim yên wekî te herêma şer de bimînin
Pênce sal jî bibore
Emê xerabiyên şer bijîn û bibînin
Ez dixwezim tu ji mirinê pir dûr bimînî
Heqê te jî wekî Sara’yan, Lîlî’yan, Elena’an welatekî azad bû
Heta îro tiştik ava nebû
Belê delala min, bejna te û ya çeka te yek e
Çînîkên li gepên te qilera (qirêja) rûnê çeke
Histerên êşê vedixwem û nîşan nadim
Nikarim firsendên başî te re bidim
Rastiyên tazî û te dibînim
Hember rewşa te li kerbê dilerizim
Bê tevger dimînim
Nikarim bêjim tu çekê berde
Here mala xwe, şûnva vegere
Bila kesên mezin şer bikin
Tifenga pênc kîlo û rextê giran rakin
Barên giran moriyên pişta te xwira dikin
Te min re got “Em heşt xweng û biranê
Em hemû li vira ne
Teyrên xilasbûnê ne”
Ez ku te re bibêm şer karê te nîne
Here li dibistanan bixwîne
Têra xwe mezin be
Gora te beşên pisporiyê hene
Bi zanabûn berhaman pêk bîne
Dizanim tu yê bi pirsan minê bide xwûdan
Dest te de ye biroşa avdan
Ez mezin im hember te şerm dikim
Giraniya barê te fêm dikim
Hûn qicik in, hûr in
Barê rewşenbîran hdi stûyên ve de man
Li çiyan çûnên xwe digirin
Zarokên ku li herêma şer de belav bûne
Nav xerabiyan de mane
Kes xwe berpirsiyar nabîne
Nafikrin
Ew rewş ser bedenên wan zarokan
Çi xerabiyan amade dikin?
Zanayên me dûr ve, bi dilên sar sêr dikin
Ez li şûna wan hemûyan şerm dikim
Bîşenga min beybûn bîn dikir
Bo gerê, dora çemê Zelê hez dikir
Pancikên şalê xwe bi erd û destan radikir
Bi evîniyê navê çiçegan liber dikir
Dema gav davêtin
Ditirsiya ku nebîne û peli gêlan bike
Wan li jiyanê dûrke
Belê berxa ber dilan
Belê delala, narîna diya xwe
Belê ez dizanim
Bi tirsa pelixandina candaran bi balkêşî dimeşî
Tu ya xwediya dilik şen, çawa meriyan biêşînî?
Ya rast hezî çek û xwînê nake
Bi heyranî sêrî dora xwe dike
Gora emr û zanîna xwe temaşeva nak e
Ya xwedî evîn nikare rindiyê teva bike
Lê belê rastiya giran
Kurmanc û gelên dora me
Bi dengên zilimkaran hişar bûn
Bi dirûşmayên tunekirinê, helandinê mezin bûn
Bin darê zorê de perwerde bûn
Loma gotinên zimanê şîrîn nagirin ber çavan
Xwastinan fêm nakin
Hîn nebûn
Bo karkirina hesiyetê

Bo parastina azadiyê
Şervantî pêwîste
Darê zorê, çek armanc nine
Ew hacet kî nebin xwastinên me
dimînîn bê mane
Xwînxwar xurtin
Leqên xwe bi zimanê nerm dikin
Gorên mirinê me re vedikin
Ji berhemên xwe qet şerm nakin
Li cîhaneke welê
Merî serhil nede nikane bijî
Bîşenga min kefsînga mirinê de ye
Pir zêde jiyanê re girêdayî ye
Bo xilasbûnê hêviya mezinan nemaye
Ez lêger û lîkolînvan bûm
Li çiyayê Zelê mêvana şervanan bûm
Dema min xelas dibû
Zariyên min li malê hêyiya min mabûn
Me li hevdu xwatir xwast
Li wan veqetin li min pir giran hat
Bi heqîba pirsan vegeriyam
Hêviya xeberên wan dimam
Dema min xebera mirina wan digirt
Li xemgîriyê dil davêt
Dem diboriya
Bîrkirin pir zehmet bû
Bîşenga min ez êşa te û hevalên te
Heta niha jî dijîm
Rastî pir giranin
Nikarim her tiştî vekirî bêjim
Wêneyên rewşa we ji bîra min
dernakevin
Bi min ve giredayîne
Xwe ve yek dikişînim
Dema ku li van bajaran
Balixên wekî te dibînim
Hûn li ber çavên min digerin
Li we lêborînê dixwazim
Caran ji bo we histêran dibarînim
Bi şewata kezebê dilorînim
Yên ku xweşbûnên jiyanê
Delaliyên dunê nasnekirin
Û ketinê paşila axa sar
Bo we digirîm û dibêjim
Bişenga min
Xwezayê delaliya delaliyan dabû
te
Lê belê keçika serxwa
Axa ku şîn lê xilas nedibû
Bo kurdan şahî pêwîst bû
Sedema bindestiyê
Te bavê xwe jî nasnekiribû
Di pevçûnên xelasbûnê de mirî bû
Deynê bavê te di hustiyê te de
mabû?
Banga rastiyan tu li Mihabadê
Mirinê jî li Zagrosan hêsir girti
bûyî
Wêneya te ya ku ber kona nahalê
kişand
Min re wekî diyariya herî pîroz ma
bû

***

## Bersîva Xaçepirsa hejmara 28




## Karîkatora hejmarê






**Çeprast:**

1. Ciyê teng
2. Hekî di Îngilîzî de - Berevajî tê wateya piştîvan – Di karê şûre çêkirinê de jî bi kar tê
3. Stiranekî Kurmancî ye – Eva – Rîşeya disojin
4. Hişke ba – Xet
5. Partiyeke xwedî nifûz a Almaniyayê
6. Di pirtûkfirotinan de ew jî heye – Golmek di soranî de
7. Hekî O bê zêde kirin tê wateya evro – Carna Kerkûk bi vê ciyê tê şibandin – Re
8. Nûçegihaniyek e – Saziya zanistî ya kar
9. Leinet kirin
10. Leşkerê Îslamê bo yekemîn car berî gihîştina bi Kurdistanê ew kel girtin

**Serjêr:**

1. Piraniya xelkê sirîlankayê ew in – Yekîtiya Ewrûpayê
2. Saziya xwarin û cotkariyê a NY
3. Berevajî tê wateya bêdeng
4. Endamekî leşê mirov e – Parzemîn
5. Em di Soranî de – Di Erebî de zaf bi kar tê
6. Pêngav – Berevajî navê yek ji pêwîstiyên her malekê ye
7. Mirov dema ku nerehet dibe wa dibêje – Rû
8. Heke O bê zêdekirin, navê şîrketa millî a nefta Wenezoelayê ye
9. Berevajî tê wateya korrê... – Celalî vê peyvê zaf bi kar tînin
10. Şîrketeke balafirîna Fransayê ye – Neteweyên Yekbûyî

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
E - Mail:
rojnama_agiri@yahoo.com
agiri2003@hotmail.com

# Yekemîn Kongireya Zanistî ya Tevgera Xwendekarên Kurd li Tehranê

Di roja 26'ê Sermaweza 1384(20.12.2005)'an, ji aliyê **Bingeha Rewşenbîrî – Xwendekarî ya Kazîwe**, yakemîn Kongireya Zanistî ya Tevgera Xwendekarên Kurd li hola Sîna ya zanîngeha Bijîşkî ya Tehranê bi beşdarbûna xwendekarên Kurd yên hemû zanîngehên Îranê hat li darxistin.



Piştî deqeyekê bêdengî ji bo rêzgirtin ji xwîna şehîdan, Kongirê dest bi karê xwe kir û xwendekarên çalak yên beşdarî Kongirê peyamên xwe pêşkeş kirin. Di vê pişka Kongirê de peyama xwendekarên zanîngehên Tehranê, Urmiyê, Tebatebayî, Bingeha Hejan ya zanîngeha Kurdistanê, Îlam, Rexistina zanîngeha Azad ya Sine, Mehabad, Zanîngeha Peyama Nûr ya Sine û Rêxistina Xwendekarî ya Maf, pêşkeşî beşdarên Kongirê bûn. Piştre fîlmek li ser tevgera xwendekarî li welatên Firansa, Almaniya û Çînê û wd... belav bû û peyama lijneya zanistiya Kongirê û peyama Dr. Keywan Ferehmand perpirs û birêvebirê kongirê derheqa erkê tevgera xwedndekarî di civakê de arasteyî mêwanan bûn. Her wiha gotarên zanistî yên birêz Dr. Celîl Sehabî, Ferşad Nusretî, Şoreş Seîd Pûr, Qehraman Kerîmî, Samal Erfanî ku ji aliyê lijneya zanistî ya Kongirê ve hatibûn hilbijartin, hatin pêşkeş kirin.

Li dirêjahiya Kongirê de êvariya roja sêşemiyê dormêzek li ser terzê hevkariyê di navbera tevgera xwendekariya Kurdî û Îranî bi beşdar bûna Dr. Selahedîn Xedîw û Ebdula Muimini sazbû û piştî ronkirina cudahiya navbera tevgera Kurdî û Îranî, rêyên hevkariya wan û hevkariya tevgera Kurdî di çareserkirina pirsgirêka Kurd li Îranê de hatin şirove kirin.

Di dawiyê de fîlma **"Kwêstanî sipî"**(zozana sipî) berhema Taha Kerîmî ku tê de rexne li şerê birakujî û eşîregerî di civaka Kurdistanê hatiye girtin, belav bû û Kongire di gel rêzgirtin ji birêveberên vê, piştî 12 seetan kar û çalakiyên xwe bi dawî hat.

# Dîwana dawî ya Bêrî Bihar "Buwariya Hestên Lerizî " derket

Vê dawiyê Dîwana dawî ya Helbestvana Kurd Bêrî Biharê derket. Ev dîwan ji aliyê Weşanên Avagon li Bakurê Kurdistanê hatiye çap û belav kirin.

Bêrî Biharê di dîwana dawî de gelek helbestên balkêş û rengîn bi pênûsê xwe afirandine û pêşkêşî xwendevanê Kurd kiriye.

Em bona derketina Dîwana **Buwariya Hestên Lerizî** ya Bêrî Bihar'ê pîrozbahiyê jê dikin û hêviya serkeftinê jê re dixwazin.




# Li Îspanyayê kişandina cixarê qedexe ye

Li welatê Îspanyayê piştî 1'ê mehê ya 2006'an li hemû cihên ji bo raya giştî vekirî, kişandina cixareyê hate qedexekirin. Fînlandiya jî dide dû Îspanyayê.

Li gor vê yekê biryar hate girtin ku li xwaringeh, bar, dîskotek, qumarxane û cihên wekî van wê êdî du beş hebin. Cihê lê cixare tê kişandin û cihê nayê kişandin. Li cihên ku cixare bê kişandin ji mecbûrî divê vantîlator hebe.



Her wiha Fînlandiya jî dê di sala 2007'na de vê yekê pêk bîne.

**'Diyarname'**

# Hunermend Şivan Perwer li ser nexweşiya xwe daxuyaniyek ji raya giştî re şand

## Daxuyanî

Ji giştiya gelê me yê hêja, evîndar, dilxwazên gel, welat, muzîk û hunerê re!

Ji demek dirêj ve ye ku ji ber çend cuda sedeman ez ketim nava stres, bêhntengiyeke giran, bi eş û nexweşî. Deng, hest, enerjî û hêza livbaziya min sekinîn û bi min re ketin şerê. Lê bi doz û daxwaziya pêşeroja welat û gel, nirxê xizmeta hezkirin û pêşxistina Muzîk û Huner, min bi heş û aqil li hember hemû êş û zoriyan şer kir û bextewar bi serketim. Min dîsa nehişt hezkiriyên min xemgîn û hemberên min dilxweş bibin.

Li piştî gelek pirskirinên cuda Bizîşk û dermanan, min di gewriya xwe de opersiyonek(niştarek) giran, lê serkevtî derbas kir. Vê gavê Tenduristiya min baş e û min dest bi xebata xwe kiriye. Şivanname di rêgeh de ye.

Spasî, Rêzî û Aştiyên xwe ji bo her kesên dost, heval û hogir pêşkêş dikim.

**Şivan Perwer**

